

Peyama pîrozbahiyê ya Mistefa Hicrî bi boneya hilbijartina Refîq Karakoç wekî serokê HAK-PAR'ê

»»» R:2



Hevpeyvîna digel Tahir Silêman sernûserê rojnameya Dîplomat a Azerbaycanê



»»» R:3

*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*
*www.agirimedia.org Hejmar (277) 03-05-2016 Buha (500) Tûmen*



Kurdistana Başûr, firsend û tehlûke

»»» R:5



Agirê şer li Bakûrê Kurdistanê…

»»» R:6

## Alîkarî di navbera DAÎŞ'ê û rejîma Esed de heye

**Alîkariya rejîma Esed digel DAÎŞ'ê li gora belgenameyan hate eşkerekirin.**



Alîkariya rejîma Beşar Esed digel girûpa terorîstiya DAÎŞ'ê hertim cihê gengeşê bûye. Ji wê demê ve ku DAÎŞ'ê dest bi ser parêzgeha "Elreqe" de girt, heya niha bombeke asayî, bombeke bermîlî, xompare, yan tu cure alaveke kîmyayî jî, ji aliyê hêzên Beşar Esed ve ber bi aliyê DAÎŞ'ê ve nehatiye avêtin, lê di hember de dijberên Esed ên rasteqîne, bûne armanca êrîşan. Eva di demekê de ye ku di bajarê "Xuteya Rojhilat" zêdetir ji hezar kesî bi çekên kîmyayî hatine kuştin, û di hember de jî, "Elreqe" paytexta DAÎŞ'ê di rewşeke asayî de bûye.

Roja Duşemiyê tora "Sky News" di nûçeyeke têr û tejî de, bas ji danûstandina veşartî ya di navbera van du aliyan de bo wergirtina bajarê dîrokî ê "Tedmûr" ji DAÎŞ'ê kir, ku amaje bo pilaneke ji pêş de darêtî dike.

"Îstwart Remzî" nûçegihanê tora "Sky News" ji kesekî ku pêştir endamê DAÎŞ'ê bûye, pirsyar dike ku: "Gelo DAÎŞ di kiryarên xwe de, alîkariya hêzên ser bi Esed dike?", Ew kes jî di bersivê de bas ji alîkariyên van du aliyan di girtina bajarê Tedmûr û şandina çekên giran bo vê girûpê dike, ku eva tenê beşek ji alîkariyên van du aliyan di girtina bajarê Tedmûr û şandina çekên giran bo vê girûpê ye, ku bi vî rengî tenê beşek ji alîkariya van du aliyan eşkere dibe.

## Hişdarî bi Rûhanî hatiye dan ku nabe xwe kandîd bike



**Elî Tacirniya nûnerê reformxwaz ê meclisa şeşem dibêje ku hin kesên deshilatdar ku di pêkhateya deshlatê de gellek nifûz hene, bi Hesen Rûhanî ragehnadine ku nabe vê carê bibe kandîd.**

Elî Tacirniya nûnerê reformxwaz ê meclisa şeşem di hevpeyvîna ligel rojnameya "Arman" ragehand ku stratejiya girîng ya "usulgerayan" ew e ku Hesen Rûhanî ji karê serkomariyê mandî bikin, lewra hemû riyekê bi kar tînin bona zext û givaşxistina li ser Rûhanî, da ku ew amade nebe ku xwe cardin kandîd bike.

Pêwendiyên di navbera Rûhanî û "usulgerayan" heyamek e ku seba lihevkirina navikî ya naskirî bi "bercame" têk çûye.

Hêjayî basê ye ku sala bê hilbijartina serkomariyê wê bi rê ve here, û her ji niha ve di torên civakî de, bas ji xweamadekirina Ehmedînijad tê kirin ku renge ew jî yek ji kandîdên posta serkomariyê be. Herçend ku reformxwaz dibêjin ku hekî Ehmedînijad vê carê xwe kandîd bike, heya nikare dengê "usulgerayan" jî bîne, çi bigihîje vê ku dengê pêwîst di nav xelkê din de bi

## Can Kirî hişdariyê dide Beşar Esed

**Can Kirî Wezîrê Karê Derve ê Amerîkayê derheq bidawîhatina şer û aloziyê di Sûriyê de, ji riya hêza leşkerî ve hişdariyê dide Beşar Esed.**

Vegeşîna şer û alozî û kirîza di Sûriyê de, û bi taybetî di van dawiyane de, li bajarê Helebê, wisa dixûye ku bandorê li ser berdewamiya agirbesa Sûriyê danê. Di heyama yek hefteya borî de, zêdetir ji 250 kes di şer û pevçûnên Sûriyê de hatin kuştin.

Can Kirî Wezîrê Karê Derve ê Amerîkayê hişdariyê dide serkomarê Sûriyê û dibêje: "Hawarbirina bo hêza leşkerî, çareseriya bidawîanîna şerê navxweyî ê Sûriyê nine", û di vê derheqê de, Beşar Esed ji encamên nerênî ên tundûtîjiyan di Sûriyê de agehdar dike.

Her di vê derheqê de, Wezîrê Karê Derve ê Rûsiyê jî, ragehand ku wisa dixûye, ku agirbesa yek alî a dewleta Sûriyê bajarê Helebê jî bigre.
Dewleta Amerîkayê piştî bombeberana nexweşxaneyekê di Sûriyê de, ku 55 kes tê de hatin kuştin, ragehand ku heya Esed di



deshilatê de be, dijberên Beşar Esed dev ji şerê li dijî wî hilnagrin, û Esed riyeke şaş girte pêşiya xwe.

## Sergotar

### Xerîbbûna boneyên cîhanî

Kerîm Perwîzî



Ji vê rojê şûnda ku cîhan di halê vegeşînê de bûye, û pêkhateya civakî siyasî ji bo aramî û rehetiya mirovan ava kiriye, û qonax bi qonax ketiye nava hewldanan de, da ku êş û eleman kêm bike, em kêm şahidê hebûna pergaleke wekî Komara Îslamiya Îranê bûne, kuberdewam xeta tunkirinê bi ser hemû riyên çareseriyê de kêşaye, û dijayetiya her cure vegeşînekê dike.

Renge mirov tenê di dema êrîşên Hexamenşiyan, Niron û Mixulan û Berberan li dijî şaristaniyetên mirovahiyê şahidê mînakên wekî Komara Îslamiya Îranê bûye, helbet niha jî DAÎŞ wekî afirandiyê destên hizrên Îslamxwazane ên tundrewane, wekî mekteba Xumeynî, digel Komara Îslamiya Îranê, bûne cemikên şerxwaz û wêrankar.

Di van çend rojên orî de, me du munasibetên cîhanî hebûn, ku nawerok û cewhera wan, nîşan dide ku rejîma Îranê çiqasî dijî hizr û ramanên cîhanî ye. Ew du munasibet jî roja cîhanî ya kedkar û roja cîhaniya azadiya çapemeiyan

Roja cîhaniya kedkar, bona vê hatiye danîn ku hemû mirov, tex û çînên civakê ji êşa çîna kedkar bihesin, û roja cîhaniya azadiya çapemeniyan jî bona vê hatiye danîn, ku di raserî cîhanê de, rêz ji azadiya ramana mirovan bihê girtin, û seba ramana wan ya cuda ji sîstemê nehêne serkutkirin.

Gelo di Îranê de kedkar û êş û zehmetiyên wan têne bibîranîn? Serbarê vê ku di bin siya deshilata hikûmeta axûndî de, êşa kedkaran û belengaz ên Îranê hezar qat zêdetir ji pêştir bûye, gelo rejîm vê îznê dide kedkaran, ku êş û zehmetiyên kedkarên sedsalên pêşîn ên Amerîkayê bi bîr bînin?

Gelo di roja azadiya çapemeniyê de, kes heya vê îznê jî dide xwe, ku bêje roja 3'ê Gulanê, roja cîhaniya azadiya çapemeniyê y?

Di roja cîhaniya kedkar de, Ruhanî kilîddarê riyakar û fêlbaz ê Komara Îslamî bi tirombêla xw eya gullenebir serdana karxaneyekê dike!. Herwisa di roja cîhaniya azadiya çapemeniyê de, di Amerîkayê de raporek ji "mala azadî" tê weşandin, ku rejîma Îranê di rîza destpêkê ya sansor û serkuta azadiya ramanê di cîhanê de dide nasandin.

Di vir de ye ku em dibînin ku boneyên cîhanî di Îranê de, digel çi xurbetekê dest û penceyan nerm dikin, û sîstema deshilatdariya Îranê heya çi qasî li dijî pêvajoya guhartinên cîhanî ne.

## Peyama pîrozbahiyê ya Mistefa Hicrî bi boneya hilbijartina Refîq Karakoç wekî serokê HAK-PAR'ê

**Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ di peyamekê de pîrozbahiya hilbijartina "Refîq Karakoç" wekî serokê nû ê HAK-PAR'ê ji endamên vê hizbê kir.**






Deqa peyamê bi vî awayî ye:

Rêzdar/Refîq Karakoç
Serokê HAK-PAR'ê
Digel rêz û silavan

Em hatin agehdarkirin ku di kongireya neasayî a HAK-PAR'ê de, ku li meha Nîsanê di Enqerê de bi rê ve çû, cenabê we yê rêzdar wekî serokê HAK-PAR'ê hatin hilbijartin.

Em derheq hilbijartina we wekî serokê HAK-PAR'ê, pîrozbahiyê li we dikin, û em hêvî dikin bi tekoşîna we rêzdarî, û bi alîkariya hemû endamên rêberiya partiya we, doza Kurd di Bakura Kurdistanê de, roj bi rojê pêşveçûneke zêdetir bi xwe ve bibîne, û pêwendî û dostatiya di navbera PDKÎ û HAK-PAR'ê berdewam bike.

**PDKÎ**
**Sekreterê Giştî**
**Mistefa Hicrî**

## Heyeteke PKK'ê serdana binkeyên Hêza Taybet a PDKÎ kir

**Heyeta Deftera Siyasî a PDKÎ pêşwazî ji heyeteke PKK'ê kir, ku bi armanca rûniştin û domandina hevahengiyan û bihêzkirina têkiliyan, serdana binkeyên Hêza Taybet a PDKÎ kirin.**



Roja Yekşemiyê 25'ê Nîsanê heyeteke PKK'ê bi serokatiya heval Sofî Nûredîn endamê serkirdayetiya PKK'ê û berpirsyarên leşkerî ê vê partiyê, serdana binkeyên Hêza Taybet a PDKÎ li ser sînorên Rojhilata Kurdistanê kir, û ji aliyê heyeteke nûnerê Deftera Siyasî a PDKÎ bi serperestiya Rostem Cehangîrî endamê Deftera Siyasî û berpirsyarê Komîsyona Siyasî-Nizamî ve hate pêşwazîkirin.

Di vê hevdîtinê de, tevî guherîna bîr û rayan, û nirxandina rewşa siyasî a herêmê û rewşa Kurd bi giştî, pêdagirî li ser dostatî û pêwendiyên dostane yên di navbera PDKÎ û PKK'ê de hate kirin, û pêdagirî li ser vê yekê hate kirin, ku di rewşa niha de, Kurd bi giştî û di hemû beşên Kurdistanê de, hewcehiya hevahengî û lihevnêzîkbûna hêzên niştimanî ên Kurdistanê zêdetir bûye. Herwisa bas û pêdagirî li ser alîkarî û hevahengiya di navbera hêzan, û bi taybetî PDKÎ û PKK'ê de hate kirin.

Di dawiya vê hevdîtinê de, heyeta mêhvan bi hurmet ve ji aliyê PDKÎ ve hate birêkirin.

## Hevpeyvînek digel Tahir Silêman sernûserê rojnameya Dîplomat a Azerbaycanê derheq şerê di navbera Ermenistan û Azerbaycanê de



**Tahir Silêman: "Îran ji vê ditirse ku rojekê Azeriyên Îranê daxwaza mafê xwe yê neteweyî bikin, û Azerbaycan jî piştgiriya wan bike".**

**H: Selîm zencîrî**

**Pirs: Bingeha şer û aloziyên navbera Azerbaycan û Ermenistanê bo çi vedigere? Gelo tenê li ser Nagorno Karabaxê ye yan tiştek din?**

Bersiv: Despêka belavbuna dewleta Yekîtîya Sovêtê ermenî dewa Qerebaxa Çîya kirin, Dewleta Azerbaycanê bersîv da û şer destpê kir. Ji ber despêkirina şerê Qerebaxê ermeni ji Ermenîstanê çiqas azerî û kurdê musulman hemû bi zorê derxistin. Hineka ku.ştin, zaroka tijî borîya hesin kirin devêwî qaynax kirin, Şemoye kurd du jinê wîva kuştin û şewutandin. Wextekî kurtda hemu azerî û kurdên musulman ji Ermenîstanê derxistin. Azerî çune Azeraycanê lê nezîkî 40 hezar kurd kîjanî ku gundê azerîya va tev jîyan tikir çune Azerbaycanê, hinek 1934-salê bi destê ermenîyavan çûbûne Qazaxistanê, Qirqistanê, Ûzbekstanê çûne bal pizmamên xwe, qewmênxwe hinekjî belavî bajar û gundên Rusîyayê bun hên jî bi halê perîşan jîyanê tikin. Ji bilî Qerebaxa çiya, niha 7 parêzgehên din ku dike 20 ji sedî ya xaka Azerbaycanê, li bin kuntirola û dagîrkeriya Ermenistanê de ye û ev yek jî zû bi zû ,areser nabe.

**Pirs: Gor dîrokê, Qerebax xak û erdnîgariya Kurdistana Sor e. Kurdên wir çi hat serê wan? demografiya wir çawa û li gor berjeweniya çi alî yan etnîkekê hatiye guherandin?**

**Bersiv:** Ji qurna 6-a despêkirî li heya qurna 12-a li Kafkasîyayê dewletên kurda Sallarîyan, Revvadîyan, Şeddadîyan hebuye. Heyya çêbuna dewletên Yekitîya Sovêtê Ermenistan nebuye, ew erda xantiya Rewanê (Beri dewleta sovete qurna 19-a li Ermenistana niha ermeni pir kem bun u nave wi Xantiya Rewane bu, piştî serrê tirka qirra ermeniya kir rusan anin rewane ci war kirin u qewat dane ermeniyan, wexte dewleta Sovet çebu elam kirin komara Ermenistane) buye û li wur azerî û kurd bi hevra jîyan kirine. Wusa jî li Qerebaxa Çîya. Hê qurna 19-da ev dewletana bin bandora Rusê Çar bûne û rûs ermenîyan ji Îraqê, Iranê, Sûrîyayê, Libnanê anîn tijî Qerebaxa Çîya kirin wexta çêkirina Dewleta Azerbaycana Sovêtê bi qanûna dewleta Yektîya Sovêtê kijan komarîda çiqas netewa kêm jimar hebu hemuya ra Otonomî dan wusa jî ermenîyên Qerebaxa Çîya, wusa jî kurdên Kurdistana Sor. Li buyerên dîrokê piştî şerhildanên Kurdistana Bakur bi qirara dewleta Tirk , Fars û Sovêt Kurdistana Sor di sala 1929-hat tunekirin, peyra ji Nexçîvanê girtî Ermenîstanê û Gurcistanê kurdên musulman hatin koçber kirin. Kurdên Azerbaycanê û Gurcistanê ra jî du rê danîn ya hûnê netewa azerî qebul bikim bimînin yan jî hune jî koçber bibin. Gellek kes bi derdê koçberîye hat nivîsar azerî û man cî û warên xweda.

**Pirs: Tê gotin ku piraniya xelkê wir Ermenî ne û serxwebûnê jî dixwazin, çima rêz ji xwast û mafên wan nahê girtin û bi fermî jî nahê nasîn?**

**Bersiv:** Qerebaxa Çîya navbera Kurdistana Sore berê û Azerbaycanê daye (orta axa Azerbaycane) û ew cî war tu wextî nebuye axa ermenîyan û ermenî qurna 19-da rus anîne li wur cî û war kirine, wexta damezirandina komara Azerbaycana Sovêtê cawa otonomi nav kirine û ermenî, azerî, kurd tev li wur jîyanê kirine, piştî şerê Qerebaxa Çîya ermeni 7- nehîyên Azerbaycanê dagir kirine, Kurdistana Sor jî dagir kirine, gellek keç û qîzen kurdan azerîyan hatine kuştin, dîl ketine û hê jî bin destên ermenîyadane. Kurdên Kurdistana Sor bi destên ermenîyên daşnak bune penaber belavi 66-nehîyên Azerbaycanê bune, jîyana penaberîyê derbas dikin. Wekî wusabû çima ermenî otonomî nedane azerîyen û kurdên ermenîstanê?

Dibe ermeni li Zaxo otonomî bixwazin û paswexta Zaxo tevî axa Ermenîstanê bikin?

Gerebaxa Çîya jî nava axa Azerbaycanêye, navbera Qerebaxa Çîya û Ermenistanê 4-nehîyên Azerbaycanê heye. Ermenî nava axa Azerbaycanê çawa otonomî dikarin bijîn, wek naxwazin pêwîste herne Ermenîstanê.

**Pirs: Ev şerê dawîn çawa dinirxînî? Gelo her dujminatiya kevn, yan destê derekî li azirandina şer de heye?**

**Bersiv:** Dawîya hemu şerran bi hevhatin û bi ashti xelas buye. Ev şerrê Qerebaxê jî yan bi şerva wê xelas be yan jî bi ashti xeberdanava wê






xellas be. Xelqê ermenî jî, xeqê azerî jî naxazin zarokên wan bên kûştin. Dewlwta Azerbaycanê Otonomîya berfire didine ermeniyan li Qerebaxa Çîya lê hine sîyasetmedarên wan qaîl nabe, lê ez bawarim ew roj wê bibe yan ermeni wê qaîlbe , yan jî temam ji axa Azerbaycanê bêne der kirin , çawa ermenî hemu azerîyan û kurdan ji Ermenistanê derxistin.

**Pirs: Bi dîtina we, Karabax nebûye qada şer û polîtîkayên deverî bi taybetî sêkoçkeya Rûsiye, Îran û Tirkiyê?**

**Bersiv:** Li dîrokê dewletên dagirker wek Amerîka, Inglîs, Fransa, Alman bona karê sîyaseta paşwexta çawa Kurdistan parçeyî pêncîya kirin û ev roj jî sîyaseta xweye qirêj dimeşînin, wusa jî Rusîya li Azerbaycanê Qerebax, li Gurcustanê Abxaziya, li Ukrayîna Denestopetopîya, nav netewa kemjimar Çêçenistan, Dagistan û yêd mayîn xayî kirine bona qada şerê qirêj ser netewan. Ji alî dinê jî pêwendî be şerê Sûriyê ve heye û gelan dikin qurbanî bona wê ku berjewendiyên xwe biparêzin

**Pirs: Rola Îranê li vî şer û dubendiyê de çawa dinirxînin?**

**Bersiv:** Îranê Ji aliyekê pêwendiyên germ ên aborî bi Ermenistanê re û ji aliyê din jî tê gotin ku Efxaniyên Îslamîst bo alîkariya Azerbaycanê dişîne û carna jî îdeaya bêalîtiyê, lê hemu gava Iran bona manfeeta xwe kar kirîye , ev roj jî wê sîyasetê dimeşîne. Ew dizane wekî azerîyên Iranê zû dereng wê dew û doza azadîya xwe ji Dewlwta Îranê biswazin û Azerbaycan jî wê pişta wan bigre. Bona wê jî Iran ruda bêjejî ez dostê azerîyame lê azadîya azerîyên Îranê perçebuna Îranêye , bona wê jî iran her tim pişkirî daye ermenîyan wê dîsa jî bide. Li hember de jî Azerbaycan piştgiriyek menewî ne siyasiyek ewqas xurt dide azeriyan, lê dîsan jî berjewendiyên her du dewletan tên parastin.

**Pirs: Îsraîl û Azerbaycanê jî pêwendiyên germ ên aborî û nîzamî û zaniyarî hene. Gelo ew têkilî li ser bingeha dujminek hevpar wekî Îranê hatiye pênasekirin yan hebûna cihûyan li Azerbaycanê de?**

**Bersiv:**Hun zanin li Azerbaycanê cihû jî jîyanê dikin û elaqetîya dewleta Azerbaycanê û Îzraîl jî başe. Ev roj zarokên cihu jî li Qerebaxê Çîya şer dike. Balyozxana Îzraîl li Azerbaycanê heye peywendîyên sîyasî û leşkirî hemberî hev başe û piştgiirî didine hev û hine tiştên sîyasî hene ku nayêne kifşê.

**Pirs: baştirîn çareser ji bo vê kirîzê çi dibînin?**

**Bersiv:** Min jorêjî got, kutasîya hemu şerran bi aştî xelas dibe, wekî nebe dewleta Azerbaycanê bi zorê ji axa xwe derîne, îdî dewletên cîhanê jî gilîyên Azerbaycanê dibên. Yan hun ermenî nav destura Azerbaycanê jîyan bikin, yan jî hûnê koçber bibin? Kutasî eve rêya cuda ne maye.

**Pirs: Soviyetê siyaseta piştgiriya gelan li teorî de pêş dixist, lê li piratîk de rolek nerênî li nemana Kurdistana sor û Komara Kurdistanê de hebû, kurdên soviyetê jî hemû tera bera, sirgûn û asmîle hatin kirin, siyaseta van niha li gor kurdan bi giştî çawan e û çiqas dikarin xwe îfade bikin, yanî rewşa kurdên qefaziyayê bi giştî?**

**Bersiv:** Ev roj dîrok şansek, mecalek daye gellê kurd, pewîste serok û reberên kurdên Cîhanê bi sîyaseta Serok Berzanîva bibin yek wekî qet nebe li Başûrê Kurdistanê, Kurdistaneke Serbixwe bê avakirin wekî paş wexta bikaribe piştgirîyê bide perçên din. Lê gellê Kurdên Sovyêta berî sed sala zêdetire ji Kurdistanê dûr bikeve jî disa kurdîtîya xwe heya niha xwedî kirîye, ez guman im Başûrê Kurdistanê Bi serkarîya Cenabî Mesûd Barzanî bibe serbixwe û helaqetîyê sîyasî navbera wan dewletên kurd lê jîyan dikin bikin, pêşdaçûna ziman , çand , û hunerê kurd wê pêş bikeve pêşîya asîmlîyasîyonê be sekinandinê.

Li Gurcustane kurdê ezdî, li rusîya hine bajaranda kurdê ji Ermenistanê bune penaber, Çeçenistanê çecen, avar, lezgî jîyan dikin, li Dagistanê Lezgî, avar, azeri, çerkez jîyanê dikin wusajî Kazakîstane, Kirqizisatanê, Uzbekstane kurd jiyan dikin

Li Azerbaycanê ji alîyê dewletê tu harîkarî nayê kirin wekî ziman, erf edet neyên bîr kirin. berê 287-hezar wexta 1921, niha resmi13-hezar

## Almanya, Îraniyekî dadgehî dike

**Dadgehîkirina Îraniyekî di Almanyayê de, bi tometa beşdariya di cinayetên şer de dest pê kir.**

Li gor nûçegihaniyan, Arya Lacewerdî ku hemwelatiyê Almanî ye, û di eslê xwe de Îranî ye, temenê wî 21 sal e, û di buhara sala 2014’an de, wêneyeke di Facebook a xwe de belav kir, ku di wê wêneyê de, serê du mirovan jî xûya dike, ku hatiye jêkirin.



Di vê derheqê de dadageha pêdeçûnê ya Firankfortê, Arya Lacewerdî bi tometa cinayetên şer dadgehî dike. Ew ciwanê bi eslê xwe Îranî di meha October a sala 2015’an de hate girtin, û tê payîn (gumana vê heye) ku navbirî di sala 2014’an de, bi armanca tevlîbûna girûpeke terorîstî serdana Sûriyê kiribe.

# Kurdistana Başûr, firsend û tehlûke





**Elî Munezemî**

Gelê kurd û destkevtên wan yên netevî li Başûrê Kurdistanê li çend aliyan ve ketiye ber gefan û pêdiviye ku hêz û aliyên kurd bo xwe derbarskirin li wan tehlûkeyan bi awayeke yekgirtî û li ser bingeha qazancên netevî bilivlivin û tevbigerin û nehêlin wek berê dîsa destkevtên kurdan li ber nebûna hewdengiyê ji destherin. Ger em li gor teoriya rastîbaweriyê (realîstî) li ser wê mijarê fokûs bikin û faktorên bihêzkirin û tehlûkeleyên ku dibin sedemê bêhêzbûna kurdan bixin ber çavan, dibe ku em li xwe bipirsin gelo ew tehlûkeyên ku bas jê hatîkirin, kîjanin? Kîjan firsend û çawa li firsendan were mifahwergirtin? Bo ku em civaba wan pirsan bibersivînin, emê li ser wan xalên jêrîn tekezbikin:

1.Yekimîn tehlûke li ser destkevtên kurdan, kurd bi xwe ne. Eger hêz û partiyên kurdan nekaribin tolirans û tehemula xwe li hember hev zêde bikin û hurmet li hev negrin û li hizra derkirina hevûdu bin li meydanê û nekaribin hevkariyê li şûna riqabeta nesax dabinên û alûgorên pêdivî li sîstim û jêrxanên desthilatdariya hikûmeta xwe de pêkneyinîn, yê kurd bi xwe bibe belayek mezin bo ser destkevtên netevî. Bo wê yekê pêdiviye ku karbidest û partiyên Kurd çend pêngavê hevce rakin: i. Pêkanîna riformên hevce li pêkhateya dezgehên hikumetê de û derbasbûna bi lezgînî li dû-idareyîbûnê. Li wê pêngavê de dibe hêzên parastinî, asayiş û pêşmerge bi zûtirîn vext bibin bi yek û bikevne dest hihûmetê û li hizbîbûnê werin rizgarkirin û kar û berpirsiyaretî bi kesên şareza were spartin; ii. Ew navend û damûdezgehên kikûmî ku li ber nakokiyan pasîv bûne, dîsan werin aktîvkirin û bo wê yekê jî her part yan aliyek bila li hember xwastikên xwe yê demkurt de hindek xwe paşvebikşîne û berjendiyên dirêjmidehe netevî bi binema bigre bo tevgera wê qonaxa xebata xwe ya netevî; iii. Şêvreke bilind li pisporan were çêkirin bo çareseriya nakokiyên navxweyî û hemû aliyek biryarên wê şêvrê re hurmet hebin û birêve bibiniv û IV. Hikûmeta herêmê dibe li pilana xwe de evlewiyetê bide hêza pêşmerge û pêdavistiyên wê hêzê, tenduristiyê û perwerdeyê.
2.Tehlûkeya hikûmeta navendî li ser Kurdan: i. tehlûkeyên leşkerî yên rasterast yan yên nerasteras, ii. Tehlûkeyên aborî û iii. Tehlûkeyên civakî.

Hikûmeta navendiya Îraqê ku piştî hiloşiyana rêjîma Baas çawerwanî jê dihatekirin ku bibe kihûmeteke dêmokratîk, mixabin nekaî xwe dêmokratîze bike û di warê hizrî de desthilatdarên nû tu cihêtiyek tevî rêjîma Baas nebû û nîne û tê eyankirin ku armanca wan tinê guhertina rûsaziya hikûmeta Baas bûye, ne ew yeka ku bixwazin jêsazî û koka wê cure sîstimê bigiherînin. Ber hindê jî, ew desthilatdarên nû dîsa bûne tehlûke li ser hebûn û berjevendiyên kurdan û xelkên din yên xwecî.
Di warê siyasî de jî bi rêya hindek bikirêgirtiyên xwe ve hevil didin ku refên yekgirtîxwaze kurd têk bidin û cudabîriya siyasî bikin bi pirsgirêk û lihevhatin û tebahiya nawmala kurd xirab bikin. Hindek kes ku serdema rêjîma berê, fêrî xwefirotinê bûne, dîsa xwe dikin emrazê destê hikûmeta navendî û li damezrandina hêzên «heşida şeibî» li bajarên kurdistanî de rol digêrin û gencên kurdan dikin fîdayê qazancê xwe yê xasmanî. Ewa tehlûkeyeke micid e û hîn zêdetir li tehlûkeyên rastevxwey hikûmeta navendî.
Tehlûkeyên aborî ku her zaf li mêjve li aliyê hikûmeta navendî ve li hember Kurdistanê hatine bikaranîn û zext û givaşeke zêde ketiye ser kurdan. Dibe xelkê kurdistanê hindek li xwastikên xwe li hember kikûmeta Kurdistanê (KRG) kêm bikin û li serdema rewşa aloza niha de, zêde xwe nekin serbarê hikûmeta herêmê; eger çi ew xwastikên xelkê heq bin jî. Hikûmeta Herêmê û hemû kesayetiyên xwedî bandor dibe wê rewşê bo xelkê zelal bikin û her kes li aliyê xweve bibin sedemê sivikkirina erkê KRG ku ew jî bikaribe pişta xwe li bin wan hemû pirsgirêkan de rast bike û pêngavên xwe qahîmtir li caran bo aliyê serxwebûnê rabike.

3.Tehlûkeya terrorîzmê: Tehlûkeyên terrorîzmê her tim li ser xelkê kurdsiatnê hebûye û heye. Lê li serdema niha de ew tehlûkeyane zêdetir bûne û xêncî terrorîzma li aliyê dijmin û hikûmetên zal bi ser kurdistanêve, tehlûkeya grûpên terrorîstiye wek Daişê jî hêşta deriyê mala kurdan bernedaye û li ciyê xwe ye. Bi derkevtina grûpa terrorîstiye Daişê û hatina zêdetir li 2 miliyon penaberan bo herêma kurdsitanê, rewşa civakiye herêmê jî aloz bûye û dikare li pêşeroja herême re bibe pirsgirêkeke ciddî. Hikûmeta herêmê dibe bo wê yekê daxwaza piştgiriya navnetevî bike ku bikare heta qasekê wê tehlûkeyê kêm bike û nehêle bibe arîşe bo civaka herêmê. Bo wî karî jî dibe Hikûmetê bernameyên întegrasiyonê hebe bo wan penaberan û wê rewşê li tehlûkebûnêve bike derfet.
4.Tehlûkeya hikûmetên zal li ser parçeyên din yên kurdistanê de anku dijminên kevnar: i. tehlûkeyên Îranê, ii. Tehlûkeyên Turkiye.

Diminên kevnare kurd ku qet çavên dîtina kurdan û destkevtên wan ninin, her hemû bi yek qasî kîn hene hember kurdan. Lê Îran û Turkiye îrorojê tehlûkeyek mezintirin li Îraq û Sûriyê bo me. Xetera Îranê li ber çend hegeran li xetera Turkiyê jî zêdetir. Li ber ku Îran xwediyê rêjîmeke terrorîstiye û tu pirensîpeke exlaqî bo gihîştin bi armancên xwe nine ku bide pey, hegemoniya wê rêjîmê li ser hindek alî û kesasetiyan li Başûr zêdeye û dikare bo têkdana nawmala kurd li xudê kurdan mifah werbigre û tevî zilhêzên wek Rûsiya û Çîn ê peyvendiyên xurt û berjevendiyên hevbeş hene. Hindek hêzên kurdan jî li ber dijayetiya Îranê bi welatên Rojavayî re, xwe li eniya Îranê û Rûsiyê de dibînin.

Turkiye jî ku divarê eskerîve endamê hevpeymanetiya atlantîka bakûr anko Nato ê ye û li aliyê Rojavayiyan ve baş hatiye pirçekkirin, dikare hebûna azadîxwazên kurd yên Bakûr ku li Başûr/Qendîlê dimînin bike behane û hêzên xwe yê leşkerî bişîne başûr yan wek caran bi hêrişên esmanî evlehiya xelkê kurd bi başûr têk bide. Lê hikûmeta herêmê dikare Turkiye hevsar bike û li ser binemaya berjevendiyên hevbeşe aborî li hev bikin. Firsendên Başûrê Kurdistanê
Hikûmeta herêma Kurdistanê firsenek

# Agirê şer li Bakûrê Kurdistanê…



**Ebdullah Hicab**

Agirêşer li Bakûrê Kurdistanê…
Li Bakûrê Kurdistanê, agirê şer ketiye nava malên xelkê û kolanên bajaran. Renge di şerê wan sî û çend salênder-basbûyî de şerê wan çend heyvên dawî,yê herî bi xwîn, dijwar, bi êş û azar û tije bombe û dûman bûbe.Dax-uyaniyên bi kîn û gefên tune kirinê ku her roj ji zimanê karbidestên dewleta Turk ve tên dubarekirin, nîşan didin ku carê hêviya aştiyê nîne. Berevajî tirsa hindê heye ku şer hêj bi xwîn, bi bandor û bi dijwarî berdewam bike û guriya agir gelek cîh û deverên din jî bigre.

Gelo rewşa niha ji ber kîna Erdogan piştî ku beşa zêde ji xelkê Bakûrê Kurdistanê deng neda siyaseta wî hate rojevê? Gelo artêşa turk bi xeyala ku dubare mîna salên 90-an bandora xwe li ser siyaseta sivîl zêdebike, dest bi şer kir? Gelo aliyên netewewperest û tundajoyên di nava partiya AKP'ê de, bi ser aliyên nerm û guhertinxwaz de bi ser ketin û xwestin serketina xwe bi xurtkirina şer li dijî gelê kurd, nîşan bidin? Gelo çavsoriya netewe-perestan rê neda ku pirsa kurd bi awayê aştiyane were çareserkirin? Gelorewşa Sûriye û Rojavayê Kurd-istanê Turkiye ji wê hindê tirsand ku niha piştî Sûriyê, êdî kurdên Bakûr serî hildin? Gelo şerê netirsane yê pêşmerge û şervanên kurd li hember DAÎŞ'ê, tirs xiste dilê Erdogan û ev xiste nava lez û bezê ku rê nede kurd bi yekdengî bibin xwediyê statûyek cuda di heremê de? Di nava tevgera Kurd de, hesabên PKK'ê ji bo serhildana gel li Bakûrê Kurdistanê şaş derketin? An serketina bê hempa di hilbijartina Palemanê li Hezîrana 2015'ê HDP û siyasetvanên kurd xiste nava hilsengandineke kurtbîn jirewşa Bakûrê Kurdistanê? Û bi dehan pirsên din ku her yek ji wan dikare çend bersivên cuda hebin….

Her yek jiwan pirsên li jêr, dikare weke yek ji sedemên destpêkirin û kûrbûna şerê ku niha li Bakûrê Kurdistanê tê meşandin bê niqaşkirin. Renge jî têkhilkêşa çend ji wan sede-man, rê ji ber şerê niha xweş kiribe. Lê sedem her çi be, encam li ber çavan e.

Di nava demek kin de bi sedan cenaze ji kurdan û ji artêş û polîsên tirk ketin qadan. Bi dehan şûnwarên dîrokî ku weke koka hebûna neteweyek xwedî dîrok û şaristanî dihatin dîtin, kawil bûn, gelek navendên bajarên Kurdistanê bûne qada şer. Bi sedan hezar kes ji mal û jiyana asayî qut bûn, û niha aware û perîşan vir de wê de koçber in. Niha nîva bajêrên Kurdistanê di nava agir û dûmanê de dişewitin û nîva din di nava tirs û bêhêvîtiyê de li bendê ne ka siberojê wê çi bê serê wan.

Dewleta tirk bi tundutîjiya ku li hember civaka sivîl û gund û bajarên Kurdistanê dimeşîne, bi kiryar nîşan dide ku xwediyê heman zêhniyetê ye, ya ku cîranên wê yêndîktator li hember dijberên xwe hene. Ew zêh-niyet ji nêrîn û reftara ku Bişar Esed li Sûriyê dimeşîne, ne cuda ye. Wêne û belgeyên ku ji qadên şer li bajarên Bakûrê Kurdistanê tên, wê rastiyê nîşan didin.

Hovîtiya dewleta tirk li hember gelê kurd ne bûyerek nû ye. Lê di wan salên dawî de, li cem hin derûdoran nêrînek çêbibû ku Tayyip Erdogan qaşo dixwaze, rêbaza berê ya siyaseta Tirkiyê li hember gelê kurd biguhere. Hin guhertinên rûkeş weke vekirina hin xwendingehên taybet ji bo zimanê kurdî, damezirandina televizyona kurdî û destpêkirina pêvajoya gotûbêj bi PKK'ê re weke nîşaneyên wê nêrîna nû dihatin dîtin. Lewma beriya şerê wê carê, îmacek nû yan nêrînek nû li ser dewleta tirk çêbibû ku ew hêvî dida êdî pirsa kurd li Bakûrê Kurdistanê bi awayê aştiyane were çareserkirin. Şer ev hêvî şikand û perde li ser niyeta bingehîne Erdogan hilda.

Di rastiyê de encamên hilbijartina Hezîrana 2015 hesab tevlihev kirin. AKPê bi salan bû kar dikir û bi awayê rûkeş xwe nerm û alîgirê guhertinan, bi taybet ji bo başkirina rewşa kurdan nîşan dida. Hêviya AKPê ev bû ku ji ber wê siyasetê li Bakûrê Kurdis-tanê bibe partiya yekem. Dengên Kurdistanê ji bo AKP'ê û pilanên wê yên amadekariya xeyalên ku bi navê bendewariyên Tirkiya 2023 dikir(100 saliya Komarê) çarenûssaz bûn. Di serî de Erdogan xeyal dikir ku şopa xwe li ser dîroka nû ya tirkiyê danê û bibe sembolek nû ji bo wê sedsalê. Kêmkirina dengê AKPê li Kurdistanê, kîna Erdogan gîhande erşê esmanan û hema ji roja piştî hilbijartinê re gefxwar ku êdî hemû pêvajoyên ku bi kurdan re dabû destpêkirin bi dawî bîne.

Di demekê de ku AKPê û dewleta tirk xwe amade dikirin pêşiya pêva-joya siyasî li Kurdistanê bigrin û riya gelê kurd ber bi azadiyê ve asteng bikin, PKKê şaşitiyek dîrokî kir û bi kuştina du polîsên hevdestê DAIŞ'ê, hêcet da destê aliyê şerxwaz. Kuştina



wan du polîsên ku dihat payîn hevkariya DAIŞê kirine û rê ji bo êrişên bombeyî yên wê grûpa hov li dijî çalakî û mitîngên siyasiye HDPê û çalakvanên kurd vekirine, hêceta dewleta tirk bo ji nû ve dest pê kirina şer li dijî gelê kurd xweş kir.

Niha şer bi dijwarî berdewame û navendên bajaran vegeriyane qadên şer. Lê di qadên siyasî de jî dewlet şerek dijwar li hember gelê kurd de dimeşîne, û dixwaze bi her awayê ku dibe, pirsa kurd li Bakûrê Kurdis-tanê tenê bi mijara şer ve girê bide. Hêrişên li ser HDPê û hewldana dewletê ji bo standina parêzbendiya parlementerên kurd, wê rastiyê nîşan dide. Dema dewlet di wî karê xwe de bi ser bikeve û tenê riya şer li ber kurdan bihêle, wê demê dikare di asta navneteweyî de rewatiyê bide şerê xwe û deng û daxwazên rewa yên si-yasiye gelê kurd bi narewanîşan bide.

Di wê rewşê de erka li ser milê HDPê û siyaseta legal (yasaiye) kurd hêzê de giran e. HDPê bi her awayê dibe bila bibe, lê nabe qada siyaseta yasayî û siyasî çol bike û rê bide qedera daxwaziyên siyasiye gelê kurd bi şer ve bê girêdan. Ev erk giran e, lê nemumkin e.

---

baş ketiye dest bo ku pêngavên bilind hilbigre bo serxwebûnê li ber ku:

5.Hikûmeta navendiya Îraqê daye ey-ankirin ku ne dikare xwe dêmokratîk bike û ne jî dikare yekparçebûna Îraqê biparêze.

6.Peyvendiyên dîplomatîk nîşan didin ku welatên bîhanî bi awayeke baş û wek dewlet û welateke serxwebûyî danûstandinê tevî kurdan dikin.

7.Kurdan û pêşmergeyên kurda dane eyankirin ku hêza dijberê terror û parêzvanê dêmokrasiyê li Rojhelata Navîn de kurdin û bi kar û xebata xwe baveriyek mezin bal welatên zilhêz destxwe xistiye û ew yeka jî bûye sedemê wê yekê ku leşkerên pêşmerge werin pirçekkirin.

8.Hikûmeta herêmê bi hebûna neft û gaze dikare enerjiya welatên Rojavayî berhem bîne.

9.Baveriya xelkê kurd bi xwe û hêza xwe ku faktora herî girînige û firsendek bêhempa dixe destê rêberên kurd li Başûr.

**Encam:**

Kurdistana başûr li rewşeke aloz de rojên xwe derbas dike û firsend û tehlûkeyên mezin li ser rêya wan hene û pêdiviye ku selêqe tevbigere. Tehlûkeyên ser rêka pêşeroja başûr nebûna tebayî û toliransa hêzên siyasî, tehlûkeya hikûmeta navendî ya Îraqê, grûpên terrorîstî wek Heşd Şeibî û Daiş û tehlûkeya Îranê û Turkiyê wek dijminên kevnare kurdan e. Hêza çekdare hikûmeta Herêmê divarê pêdavistiyên leşkerîve rengbe nekare li tevî wan hemû tehlûkeyan li yek demê de rabiveste, lê firsendên mezin jî li destên Kurdên Başûr de hene û eger bi başî mifah jê were vergirtin, yê wan tehlûkeyan bêkarker bike. Wek tevgeriyana welatên bîhanî tevî Başûr wek welateke serbixwe di warê dîplomasiyê de, pirçekirina hêzên pêşmerge, likarketina hikûmeta navendiya Îraqê, berjevendiyên hevbeşe aborîye hikûmeta herêmê bi Turkiye û Rojavayiyan re û piştgiriya gelê kurd li xwastikên xwe û hikûme-ta xwe. Hêviya me jî ewa ye ku xwastikên gel werin bicî anîn.

## Nerîna Lîderan



Xamineyî: “Amerîkayê tenê li ser kaxezê tehrîm rakirine”.




Tramp: “Ezê ji Kilîntonê zêdetir xizmeta jinan bikim”.



Rehîm Sefewî: “Tehran piştgiriya temam dide hikûmeta Beşar Esed, û heta bikare rê nade ku desthilata Sûrî hilweşe”.



Zeyd Bin Reid El-husêyn: “Şikesta Konseya Ewlekariyê di çareserkirina kirîza Sûriyê de cihê şermê ye”.

## Îskoretekî taybet yê Xamineyî hate kuştin

**Yek ji îskortên hêza taybet yê parastina rêberê rejîma Îslamî ya Tehranê Elî Xamineyî hate kuştin.**



Li gorî nawendên nûçegihaniyê ên rejîma Îslamî, roja yekşemî 30’ê Nîsanê, pasdar “Hesen Ekberî” ku yek ji Efserên “Spaha Welî Emr” yê hêza taybet bi parastina Xamineyî ye, hate kuştin.
Malperên ser bi Spaha terorîst ya Pasdaran ragehandin ku, navbirî di dema me’mûriyeta fêrkariyê û perwerdehiyê de, û bi sedema kêşeya teknîkî ya “Çek” hatiye kûçtin.
“Spaha Welî Emr” hêza leşkirî ya taybet bi Spaha terorîst ya Pasdaran e ku, sala 1986’an hatiye damezirandin, û çalakiya herî sereke ya vê hêzê parastina rêberê rejîma Îslamî Elî xamineyî ye.

## Pêşnivîsa pirojeyasayekê li dijî rejîma Îranê, di kongireya Amerîkayê

**Nûnerekî eyaleta Vîrciniyayê, pêşnivîsa pirojeyasayekê teslîmî kongireyê kiriye, ku reftara Îranê di kendavê de, têkderane bi nav dike.**



Li gora rapora nûçegihaniya “Associated Press”ê, nûnerekî Komarîxwaz di meclsa nûneran a Amerîkayê de, pêşnivîsa pirojeyasaya tehrîmkirina Îranê di kendavê de, ji kongireyê re şandiye.
Nûnerê Vîrcîniyayê di kongireya Amerîkayê de, di vê pirojeyasayê de bas ji vê dike, ku hebûna

Hêzên leşkerî ên rejîma Îranê di kendavê de, têkderane ye, û dibe ku tehrîmên nû bi ser Îranê de bêne sepandin.
Navbirî ragehand ku rejîma Îranê guh nade yasayên navneteweyî yên deryavaniyê, û manorên leşkerî ên wan di kendavê de jî, têkderane ne.
Di doma pêşnivîsa vê pirojeyasayê de hatiye, ku hêzên çekdar ên Amerîkayî di nava avên navneteweyî de, ji aliyê Spaha Pasdaran a Îranê ve bi dîl hatibûn girtin. Di dawiya vê pêşnûsê de daxwaz ji dewleta Amerîka hatiye kirin, ku bersiveke tund bidin reftarên metirsîdar û xeyrî pîşeyî, ên rejîma Îranê.

## Îtila’at zexta zêdetir dixe ser malbatên pêşmergeyan




**Wezareta Îtila’atê a rejîma Îranê li Kurdistanê endamên malbatên pêşmergeyên PDKÎ bangî nawenda Îtila’atê dike, û lêpirsînê li wan dike.**

Li gora nûçeya ku gihaye malpera Kurdistanmedia, Wezareta Îtila’atê daxwazê ji malbatên pêşmergeyan dike, ku alîkariya wan bikin, yan jî zarokên xwe vegerînin Îranê.

Hevdem digel destpêkirina rewteke nû ji xebata PDKÎ, nawendên ewlehiya rejîmê li Kurdistanê, ji riyên cur bi cur ve malbatên pêşmergeyan dixin bin zextê de.

## Spaha Pasdaran çekên giran li Kurdistanê cihgîr dike

**Piştî peyama Newrozî ya Hizba Demokrata Kurdistanê û ragehandina pêvajuyeke nû ji xebatê, hêzên Spaha Pasdaran çek û teqemeniyên giran û nîv giran li deverên sînorî ên Urmiyê cihgîr dike.**



Ligorî nûçeya gehiştî destê malpeya Kurdistanmedia yê, hêzên Spaha terorîst ên Pasdaran, bi merema berbirûbûna çalakî û biryarên Hizba Demokrata Kurdistanê, çek û teqemeniyên giran û niv giran li herêma “Tirgewer” ya ser bi bajarê Urmiyê cihgîr dike. Çavkaniyên haydar dibêjin ku Spaha terorîst ya Pasdaran, bi damezirandina topxaneyê li herêma Tirgewer, hewla mêlîtarîzekirina deverê û rêbanan dide.
Çavkanî herweha da zanîn ku Sipaha Pasdaran akinciyên deverê haydar kiriye ku heya 40 km, ji xala Sifir ya sînorî dûr nêzîk nebin.
Piştî ragehandina peyama Newrozî ya Hizba Demoktara Kurdistana Îranê ji aliyê Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê vê Partiyê ve, hêzên Sipaha Pasdaran li piraniya Kurdistana Rojhilat ketine rewşa avarte û amadebaşiyê de.
Sekreterê giştî yê HDKÎ di peyama xwe de ragehand ku, “Peyama me di cejna Newrozê de eva ye ku, deng û şiyanê xwe li bajar û çiya lihev bixin, bona avakirina hêzeke qahîm û çarenivîssaz, da ku jiyaneke nû ji mere binivîse, jiyanek dûr ji serîtevandin û bê mafiyê”.
Mistefa Hicrî herweha daxwaz ji xortên Kurdistanê kir ku, bi merema jinû ve destpêkirina jiyana bi serbilindî û bidawîanîna serşorî û paşketinê, tevlî refên pêşmergeyên Hizba Demokrata Kurdistana Îranê bin.

# Zîba Salihî: “Du bira û xûşkeke min di temenê ciwaniyê de koça dawiyê kirin, û min nekarî wan bibînim”.



**H: Behar Rostemî**

Jiyana dûr ji axa bab û kalan pir giran û zehmet e, û pişta mêran û şêre jinan kûr dike, lê girantir û zehmetîtir eva ye ku, mirv bi xwe li xerîbiyê be û nekare vegere, û kes û kar û xweşteviyên wê/wî bi her sedemenkî koça dawiyê bikin û bê dîtin û xatir xwestin, malavayî ya yekcarî bikin.

Zîba Salihî yek ji wan şêre jina ye ku, serbarê vê ku pitir ji 3 dehikane ku ji axa bab û kalên xwe xerîb maye û di xurbetê de şev û rojên xwe derbaz dike, û di wan 3 dehikan de 2 bira û xweşikek xwe jidest dide, û nikare



wan bibîne û xatira xwe ya yekcarî ji wan bixwaze, û daxwaza gerdenazayîyê bike.

Zîba Salihî keça Hesen, sala 1963’an (1342) li gundê kesnezan ya ser bi bajarê Seqizê, di malbatek nîştimanperwerde hatiye dinê û devrana zarokatiya xwe her li gund kesnezanê derbaz dike.

Zîba Salihî derheq bi nasyariya xwe tevî tevgera rizgarîxwaziya Kurdan û Hizba Demokrata Kurdistana Îranê weha dibêje: “Her di despêka ragehandina xebata eşkere ya Hizba Demokrata Kurdistanê, hevjînê min Elî Kesnezanî bûye pêşmerge û çeka şerf û serfiraziyê kire milê xwe, piştre û di sala 1979’an dema ku şoreşa gelên Îranê biser ket, û komîteyên Hizba Demokrat li gund û bajarên Kurdistana Rojhilat hatin awakirin, komîteya gundê Kesnezanê ya ser bi herêma Serşîw ya Seqizê jî hate awakirin, eva bûne sedem û bi hûrî û bi kûrî ez tevî tevgera rizgarîxwaziya gelê Kurd li Rojhilatê Kurdistanê bi Rêberiya Hizba Demokrata Kurdistana Îranê, nasyar derkevim”.

Zîba Salihî derheq bi jiyana xwe ya hevpar dibêje: “Dema temenê min 12 salî bû, min jiyana hevpar tevî kurekî hevgunduyê xwe bi navê “Elî Kesnezanî” pêk anî û heya niha em ji jiyana xwe ya hevpar berdewam in, lê mixabin tu carî em nebûne xwediyê zarokan”.

Zîba Salihî niha jî piştî pitir ji 3 dehik jiyana di nava şoreşê de çavnihêriya xwe ji hizba xwe û hevjînê xwe yê xebatkar û pêşmerge, weha tîne ziman: “Sala 1987’an (1366) hevjînê min “Elî” vegeriyabû hundin Kurdistana Rojhilat, wî çaxî ez heyamê 6 heyv û 15 rojan li “Asayişgaha Radyoyê” bi tenê mam, min tu kes nas nedikir, pir zehmet bû ji min re, lê “Mam Hesen Dêwaly” li pey min hat û ez birim mala xwe heya Elî yê hevjînê min vegeriya, ez li mala wan mam, eva ji min re pir xweş bû, û tu carî ji bîra min naçe”.

Zîba Salihî herweha roja herî nexweş a jiyana xwe weha tîne ziman: “Rojên nexweş di jiyana nava xebat û berxwedanê de zêde ne, lê roja herî



nexweş ya jiyana min ew roj bûn ku, ez li xerîbiyê û li derveyî welat û di nava kempên Hizba xwe de bûm ku, 2 bira û xûşkek min di temenê ciwaniyê de koça dawiyê kirin, û min nekarî ku ez wan bibînim û xatra xwe ji wan bixwazim û geredenazayiyê digel wan bikim, eva ji min re pir nexwş bû û niha jî min aciz dike”.

Zîba Salihî di dawiyê de rû li keç û jin û dayîkên Kurdistanê dike û bi vê gotinê dawiyê bi hevpeyvîna xwe tîne: “Daxwaza min ji keç û jin û dayîkên Kurdistanê ev e ku, serbarê perwerdekirina zarokên xwe bi welatparêzî û nîştiman dostiyê, hertim piştevanê hizba xwe, wate Hizba Demkorata Kurdistana Îranê bin”.

## Li bajarê Gulpaygané li ber çavê xelkê cezaya qemçiyan ya jinekî hate birêvebirin

**Hêzên ser bi Komara Îslamî ya Îranê li bajarê Gulpayganê, di kiryarekî ne mirovane de, hukmê jinekî bi rêve birin ku bi lxistina derbên "Qemçiyan" hatibû cezadan.**

Roja Çarşemî berwarê 27'ê Nîsanê hêzên ser bi hikûmeta Komara Îslamî ya Îranê, li pêş çavê xelkê bajarê Gulpayganê, hûkmê jineke girtî bi naznavê (s – t) birêve birin û navbirî xistin ber derbên "Qemçiyan".
Eva di demekî de ye ku hate ragehandin, xincî cezaya lêxistina derbên Qemçiyan, cezaya 15 sal hebsê jî bi ser vê jinê de hatiye sepandin.

Tê zanîn ku eva heyameke bi awayekî sîstematîk zext û gîwaşên ser xelkê li Îranê ber bi zêdebûnê ve çû ye, û her di vê çarçoveyê de hejmara îdam û îşkence û Qemçî û tepeserkirinên xelkê Îranê bi awayekî berçav ber bi zêdebûnê ve çûye.
Her di vê rasteyê de hate eşkerekirin ku rojên 23 û 26 Nîsanê li girtîgehên Zahidan û Qezwînê de 9 kes hatine îdamkirin .
Herweha girtiyek din jî li bajarê Sariyê hatiye îdamkirin.



## Polîsê Namehsûs bi awayê Mehsûs (Eşkere) diziyê dike



**Gelaleya Polîsê Namehsûs ku ji aliyê Hêza Întizamî ve hatibû darêtin, piştî destbikarbûna xwe, bi eşkere dest awêt dîzîna kelûpel û tiştên xelkê.**

Malpera "Tabnak"ê di vê derheqê de ragehand ku, roja Sêşemî berwarê 26'ê Nîsanê, çend kes xwe bi Polîsê Namehsûs didin nasîn û li derveyî parêzgeha "Hormozgan"ê pêşiya tirumbêlên xelkê deverê girtine û dest awêtine diziya kelûpel û tiştên xelkê.

Wan kesan di kincên asayê de (Libas şexsî) bi hilgirtina hêmaya "Bisekine" tirumbêlên xelkê sekinandine û piştre pere û kelûpelên wan dizîne.

Eva di demekî de ye ku gelaleya Polîsê Namehûs ku ji aliyê Hêza Întizamî ve bona parastina ewlehiya xelkê hatibû darêtin, niha bûye henekên xelkê û dijkiriyar û nerazîbûnên zêde di nava torên civakî de bi dû xwe re aniye.

## Ji 3 zarokên Bakura Kurdistanê, zarokek di bin xeta hejariyê de dijî

**Li Bakura Kurdistanê rewşa aboriya xelkê xirabtir dibe, û li gor zanyariyan, ji her 3 zarokên li Tirkiyê û Bakura Kurdistanê, zarokek di bin xeta hejariyê de dijî.**



Li gor pênaseya xeta hejariyê ya Yekîtiya Ewropayê (YE), li Bakura Kurdistanê û Tirkiyê hejmarek mezin a welatiyan û bi taybet zarok di bin xeta hejariyê de ne.

Li gor amaran, ji 20 milyon zarokan zêdetir ji 7 milyon zarok li Tirkiyê û Bakura Kurdistanê hejar in.

Li gor lêkolîneke Aborî û Civakî ya Navenda Lêkolînên Zanîngeha Bahçeşehîrê li Tirkiyê, zêdetir ji nîvê zarokên hejar li herêmên Derya Spî, Bakura rojavaya Anatoliyayê, rojhilata Anatoliya û Bakura Kurdistanê dijîn.

Li gor zanyariyan, li Bakura rojhilata Anatoliyayê %52.9 ji xelkê di bin xeta hejariyê de dijîn, û herwiha li Bakura Kurdistanê jî ev rêje zêdetirî %51.1'ê ye. Li gora gotina çavdêrên siyasî piştî vê ku şer û pevçûn di Bakaura Kudristanê de berfirehtir bûye, bandore xwe li ser aboriya Tirkiyê kiriye, û di encama xirapira rewşa aborî, rewşa jiyana xelkê medenî û bi taybetî rewşa jiyana zarokan berbirûyê gellek tengasiyan dibe.

## Rejîma Tehranê regeznameya Îranî dide endamên bîhanê ên Spaha Pasdaran

**Meclis şêvra Islamî ya Iranê yasayek pejirand ku têde regeznameya Iranî pêşkêşî malbata wan bîhaniyan tê kirin ku, endamên Sipaha Pasdaran bûne û di şerê Îran û Îraqê û herweha şerê li Sûriyê de, hatine kuştin.**



Roja Duşemî berwarê 2'ê Gulanê nûçegehaniya dewletî ya rejîmê "Îrna" yê ragehand ku, "Meclisa Şêvra Îslamî" bi pejirandina vê yasayê hişdariyê dide dewletê ku, gerek di salekê piştî daxwaza regeznameya Îranê, ji aliyê hevjîn û zarok û dayîk û babên wan kesan, ku endamên Sipaha Pasdaran bûne û di şerê di navbera Îran û Îraqê de û herweha di encama şerê Sûriyê de canê xwe jidest dane, daxwaza wan bê pejirandin û dewlet regeznameya Îranê pêşkêşî wan bike.

Eva yasa wan Îraqî û Efxanî û Pakistaniyan digire ku çaxê şerê 8 salî yê di navbera Îran û Îraqê de li kêleka hêzên rejîmê li dijî Sedam Husên şer kirin, û herweha di 5 salên dawiyê de li kêleka hêzên ser bi Beşar Esed, li hêzên azadîxwaz ên Sûriyê dixin. Eva di demekî de ye ku di sala 2015'an de Meclisa Şêvra Îslamî ya rejîma Tehranê gelaleya dayîna regeznameya Îranî bi wan zarokan ku dayîkên wan Îranî ne û babên wan bîhanî û yan jî şehîdên bîhan ye, ret kir.

## Navên Kurdî di nasnameyan de qedexe ne

**Li Tirkiyê û Bakurê Kurdistanê heya niha bikaranîna navên kurdî di nasnameyan de qedexe ye.**



Li Bakurê Kurdistanê û Tirkiyeyê hê jî di nasnameyê de bikaranîna navên kurdî qedexe ye. Malbat nikarin navên ku tê de tîpên Ê, Î, Û, Q,W û X tê de cih digrin li zarokên xwe bikin. Ji ber vê yekê zarokên kurd li malê bi navê kurdî û li dibistanê jî bi navekî din re rû bi rû dimînin.
Li gorî gotina hikûmeta Tirkiyeyê navên kurdî li Tirkiyeyê serbest in. Lê nasnameyên zarokan wisa nabêjin. Ji ber ku qanûnên Tirkiyeyê rê nadin tîpên x,w,ê,î, û, q, bi dehan navên kurdî weke peyveke bê watê di nasnameya zarokan de cih digre.
Êvar jî di nasnameya xwe de xwediyê naveke bê wate ye. Lewre ji ber ku "ê" qedexeye navê wê di nasnameyê de "Evar" hatiye nivîsandin.
Navên ku di nasnameyê de xelet hatine nivîsandin, psîkolojiya zarokan jî têk dibe. Weke Axîn...Axîna malê di dibistanê de dibe "Ağîn".
Her çiqas li gorî malbatan xeletiya navan pirsgirêkeke mezin be jî, rêveberên AK Partîyê wisa nabînin. Ew dibêjin, ha Bawer, ha Baver. Tenê di telaffuzê de ferq heye.
Li gorî gorî qanûna nifûsê ya Tirkiyeyê tîpên kurdî li dijî orf, adet û rêzimana Tirkî ne. Rêzimanê tirkî ji 29 tîpan pêk tê û tê dê 6 tîpên kurdî tune ne.

## Tona vegotinê di çîrokê de

**Ezîz Hekîmî**




Tona vegotinê di çîrokê de, wek pêkhateya herî girîng di tevgera xwîner bi çîrokê re tê hejmartin. Tona vegotina çîrokbêj, dikare hesta xwîner li hember bûyer û karakterên çîrokê bilivîne û wan bike hogirê wê.

Dibe ku naveroka çîrokekê baş û zelal be, herwiha di aliyê rêziman de jî bê kêmasî be, lê eger toneke kêrhatî tê de nebe, dibe vegotineke bêzarker û xwîner bi xwe ve girênade.
Tona vegotina çîrokê, beşekî sereke ji afirandina wêjeyî ye ku dikare tevahiya çîrokê bixe bin bandora xwe de.
Peyvên çîrokê yên yekemîn, tona vegotinê destnîşan dikin. Xuya ye ku pêwist e ew ton heta dawî berdewam bibe û bi rengekî zindî ber bi pêş ve here.
Tona vegotinê di demekê de tê diyarkirin gava çîrokbêj hatibe destnîşankirin. Divê ew yek jî li bîra me be ku ne hertim çîrokbêj nivîskar e. Bi baweriya piraniya nivîskarên profesyonel, nivîskar nikare bi xwe vebêjer be. Li gor vê yekê jî, divê tona vegotinê ne karvedana taybetmendiyên kesayetiya nivîskar, lê ya karakter be.
Pêkan e hinek nivîskarên nû bi zimanê xwe yê normal binivîsin. Lê di vê rewşê de metin ne şêweya çîrokeke cidî, lê ya bîranînan werdigre. Nivîskarê profesyonel dikare karakterekî dirust bike ku bi tu hawî neşibe wî bi xwe. Bi vî rengî çîrokbêj tenê nivîskarê wan peyvan e ku ji zarê karakter derdikevin yan di xeyala wî de derbas dibin. Tew tona vegotinê bo behskirina reftarê jî, ne tona vegotina nivîskar, lê ya karakter e.
Hilbijartina tonê, wek hilbijartina aktorên filmekî ye. Divê deng, rûdêm û tevgera aktor bi senaryoya fîlm re li hev bikin, daku karakter di çavê temaşevan de karakterekî zindî be.
Di vî warî de ez dikarin behsa mînakên serkeftî di rollîstina karakteran di rolên cuda cuda de bikim. Lê rollîstina Christoph Waltz di fîlmê Inglourious Basterds (Bêjiyên Bêrûmet) de mînakeke serkeftî ye di guncandina kesayetiya siruştî û şiyana aktor bi karakterê fîlm re.

Christoph Waltz di wî fîlmî de bi rola Hans Landa dilîze ku efserekî Alman ê Nazîst e. Landa pir bi bedewî, edeb û xwendewarî tevdigere, lê di heman demê de pir bêrehm û niyetpîs e jî.
Christoph Waltz ê nemsayî li ser vê rolê, ji bilî Xelata Oscarê, Xelata Golden Globe, BAFTA (Xelata Fîlman a Akademya Brîtanî) û çend xelatên sînemayî yên din jî wergirt. Çavkanî: Rudaw

## Gotinên Navdaran



A: FIRAT CEWERÎ

Ziman avahiyek ku her kes kevirekî datîne ser e.
**Emerson**

Deynkirin ne zêde ji parsekiyê bi ferq e. **Lessing**

Ji berdêla ku mirov ê împaratorekî mirî be, mirov parsekekî li jiyanê be çêtir e.
**La Fontain**

Zarok serweta feqîran e.
**Thomas**

Hindikahî kane neheq be, lê piranî hertim neheq e.
**Ibsen**

Her tişt tê guhertin, lê tu tişt winda nabe.
**Ovidius**

Her tişt diherike.
**Heraklitos**

Ji guhertinê pêve her tiş tê guhertin.
**Zangwill**

Em her roj tên guhertin; wê raman û afirandinên me çawan weke xwe bimînin?
**Carlyle**

Kêmasiyên demokrasiyê, dîsan bi demokrasiyê ji navê radibe.
**AlfredE. Smith**

Demokrasî îdara gel, ji aliyê gel, ji bo gel e.
**Lincoin**

# KURDÎ ABC




1. Tilîya beranekê
2. Tilîya nişandekê
3. Tilîya navçe
4. Tilîya gûstîlkê, babeluç
5. Tilîya piçûk
6. Kefa dest
7. Neynûk
8. Pişta dest
9. Xaxikê tilîya (Xaxikê pêşi, xaxikê navçe, xaxikê dawi)

Şikil 4: Destên mirovan

## Hevalno ka dê kî ji we vê mamikê bizane

Tiştek heye:
Kalokek tê ji deştê,
Barê striyan li piştê.
Ew çi ye? (oljr)

## Hevalno ka dê kî ji we vê mamikê bizane

Tiştek heye:
Sê ling, sê dar
Çar ling pê da
Du ling hat û himik lê da.
Ew çi ye? (ʞsəW)

## Tiştonek



A: Mahir Berwarî

1- Gewru di rît, soru dihavêt.
- Sê tilî sê pê ne, li nav deştê ne, mîr û hakima pal lêne.

2- Deng jê dihêt, rih tê ne.
- Dema mast didimê, bi reqasa xwe re nîvişk li min vedigerîne.
- Sên lingo di siyê da, dun lingo pêda, devê wî li ber zikê diya te, gûyê wî di devê heftê bavê te, tu çawa dikî kêfa te.
- Tipên e xoş tipên e, du destin du pê ne, deng jê tê ruh tê ne.
- Ser nişîve, ling li hewa, spêdê radbin ji ber xewe, karê bêrîvana ewe.
- Tiştekê min ji tişta, derê wî li dayka te, gûyê wî di de devê babê te.

3- Marhulîsê di kurê da di lîze.
- Hirve ber û wirve ber, yê di nîvê da mîr Omer.

4- Texa çulî bi kevrî ve.

5- Mirîşka reş kibab e, çiyê bixot se bab e.
- Reş e di agir de sor û gewr e.

6- Qesra du der e, ji derekî derdikevim, ji derekî serdikevim.
- Qesra 2 der, tê çûme der, Ilahu ekber.
- Pat e/mil e bê ser, pişt e bê zig, dest e bê pê.
- Dara di dulê da, dul rizî, dar ma wisa.

Têdîtin: Amadekar deştkariya devoka metelokan nekiriye

Xwendevanên hêja!
Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin



# Agirî

- Rojnameya "Agirî" di van malperên jêrên de bixwînin:
- www.Kurdistanmedia.com
- www.Agirimedia.org
- rojnamaagiri@gmail.com
- www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (277)

## Rêûresma bidawîhatina dewreya 218 ya destpêkî a pêşmerge di fêrgeha siyasî -nizamî a PDKÎ de
















